*Bidestveanîna mafên netewî yên gelê kurd*
*di çarçoveya Îraneke demokratîk û federal de*

# Agirî

Duheftînameyek Siayasî-Giştî Ye, PDK Îranê diweşîne www.kurdistanmedia.com/kurdî
www.agirimedia.org Hejmar (238) 23-09-2014 Buha (150) Tûmen

# *Hevalbendiya li dijî terorê divêt giştgîr be*




**Roja 17'ê Îlonê (26'ê Xermananê), rêûresmek bi boneya 22'emîn salvegera terorkirina Dr. Şerefkendî û hevalên wî, bi beşdariya mêhvanan, endamên rêberî, û kadr û pêşmergeyên PDKÎ di binkeya Deftera Siyasî ya PDKÎ de bi rêve çû.**

Ew rêûresm bi xwandina marşa neteweyî ya "Ey Reqîb" û ragirtina deqeyekê bêdengî bo rêzgirtin ji riha pak ya şehîdên riya azadî û rizgariyê bi taybetî şehîdên Mîkonosê dest pê kir.

Piştre rêzdar Hesen Şerefî cihgirê sekreterê giştî yê PDKÎ li derheq terora Mîkonosê, û terorîzma dewletî ya rejîma Îranê çend gotinek pêşkêş kirin.

Naweroka vê rêûresmê xwendina peyamên Yekîtiya Lawan, Jinan û Xwendekaran, û herwisa çend sirûd û helbest û pexşanên taybet bi vê rojê bûn.

Ji aliyekî din ve, her bi boneya salvegera vê karesatê, û rêzgirtin ji yad û bîranîna şehîdên Mîkonosê, pêşbirkêya revîna Maratonê bi beşdariya pêşmergeyên PDKÎ bi rêve çû.

Hêjayî basê ye ku deqa axavtinên rêzdar Hesen Şerefî di rûpela 3'ê de hatiye bilavkirin.




## Birêz Mistefa Hicrî sekreterê giştî yê PDK Îranê:

*"Rejîma Îranê sebebkarê şerê DAÎŞ'ê li dijî Herêma Kurdistanê bû".*

R: 5

*Daxûyaniya Deftera Siyasî ya PDKÎ li derheq êrîşa Dewleta Îslamî bo ser Kobanê*




3

*Deqa peyama Deftera Siyasî ya PDKÎ ji bo 7'emîn kongireya KCD'ê*



2

*"Hekî hemû xizm û kesên min jî ji nav çûbana, ez bi qasî şehîdkirina Dr. Qasimlo dilgiran nedibûm".*


Birêz Selîm Seyad

8

*21'ê Îlonê roja ku qet ji bo gelê Kurd aramî li pey xwe neanî*




9

*Bîranîna ekterê navdar ê Kurd Yilmaz Gûney*



10

Sergotar

# Tirsa rejîmê ji Mîkonosê




Şehab Xalidî

Rejma Komara Îslamiya Îranê ku piştî terorkirina Dr. Qasimlo, baş zanî ku PDKÎ bi rêberiya Dr. Şerefendî her li ser piya ye, û neketiye qedeman, û PDKÎ bi xebata germ û gorr ya xwe cardin bûye belaya ser vê rejîma terorîst û terorperwer, hewl da ku vê carê jî, rêberê gernas û şoreşger ê gelê Kurd, Dr. Şerefkendî bike armanc.

Herçend mixabin wan karî vê pîlana xwe ya terorîstî di restorana Mîkonosê de bi rêve bibin, lê Mîkonos jî bû belaya serê wan, bi awayekî ku niha jî, bi anîna navê Mîkonosê tirs û lerz dikeve leşê wan, jiber ku şehîdkirina Dr. Şerefkendî û hevalên wî, rûyê reş û rastiya terorîstbûna rêberê nizama wan, wate Xamineyî û kirêgirtiyên din yên rejîmî ji bo tewahiya cîhanê îsbat kir. Herwisa dadgeha serbixwe ya Alman jî, bi domandina karê xwe bo selimandina rastiya vê bûyerê, êdî ew peyama ji rêberên rejîma Îranê re şand ku hemû dadgehek di Ewropayê de, ne wek ya Nemsayê ne ku bikevin jêr barê zextên dewletên xwe de. Lewra divêt ew dest ji wan kiryarên dijî mirovî yên xwe hilgirin.

Ji hemiyê giringtir her çend rejîmê gellek teror di derveyî welat de, bi rêve birin, lê piştî biryara dadgeha Mîkonosê êdî wan ew cur'et tuneye ku rêberên payebilind yên partiyên siyasî, yan siyasetvanên naskirî di nav dilê Ewropayê de teror bikin.

Lewra em dikarin bêjin şehîd Şerefkendî her çawa ku di dema jiyana xwe de, bibû belaya serê vê rejîmê, piştî şehîdbûna xwe jî, derbeke dijwar li cesetê vê rejîmê da, bi awayekî ku navê Mîkonosê êdî ji rejîmê re bûye kabûsek, ku ew kabûs dibêje rejîmê, êdî teror bes e!.

# Deftera Siyasî ya PDKÎ ji bo 7'emîn kongireya KCD'ê peyamek şand ku deqa vê peyamê bi vî awayî ye:




Birêz Mihemed Salih Qadirî endamê Komîteya Navendî ya PDK Îranê di dema xwendina peyama Deftera Siyasî ya PDKÎ de

**Birêz kongireya Civaka Demokratîk (KCD)**
**Tevî silavên xebat û berxwedanê**

Di serî de dixwazim li ser navê Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê (PDKÎ), pîrozbahiyeke germ li kongireya 7'emîn a we bikim, û hêviya serkevtinê di karûbarê we da bixwazim.

Wek dizanin Kurd mezintirîn neteweya bê dewlet di asta cîhanê de ye, û ew pêwerên weke ziman, ax, dîrok, kultur, aborî û îradeya hevbeş, hêmaya netewebûna gelê kurd in. Lewma xebata gelê kurd berî ku bo rizgarî ji bindestiyê be, xebat ji bo nasnameya neteweyî ye.

Gelê kurd di çend qonaxên dîrokî da rastî gellek tirajîdî û jînosayd û parçekirinan bûye, û ji aliyê sîstemên serdest ve tim û tim pirojeya bêmafkirin û helandina nasnameya neteweyî ya Kurd û Kurdistanê hatiye dayîn . Lewma xebata Kurdan berî her tiştî xebat bo xweparastin û bidestxistina mafên neteweyî ên xwe bûye.

Ew xebata han her dem tevî xebat ji bo nasnameya neteweyî, girêdayî bi esasgirtina pirensîpên bihagirane wek: kerameta mirovî û demokrasî û dadperwerî ya civakî bûye.

Ji hêla neteweyî ve, ew siyasetên sîstematîk ên dagirkerên Kurdistanê di sedsala bihurî da ku bo bêmafkirin û asimîlekirina Kurdan hatiye meşandin, mezintirîn metirsî bûye li ser tevgera azadîxwaziya Kurdistanê.

Bi nerîna me pêşmercê bi hevra man, û jiyana bi aştî ya neteweyan di coxrafiyayeke hevbeş da, berî her tiştî qebûlkirina maf û nasnameya weke yek bo hemû neteweyan e.

Ji bo çareseriya wan pirsên girîng ên han em weke PDKÎ di Îran û Rojhelata Navîn da, sîstema fîderalî bi baş dizanin. Ji bo çareseriya hemû pirsgirêkan di her qonaxekê da, me bawerî bi diyalog û çareseriya aştiyane heye.

Em dijî terorîzmê di her şikl û di her cihekî da ne, û vê kiryarê çi ji aliyê dewletê ve be, yan ji aliyê saziyekê ve be, pirotesto dikin.

Wek hûn dizanin rejîma Komara Îslamî ya Îranê ji roja yekemîm de ku deshilat bi dest ve girt, heta niha jî, yek siyaset hebûye, ew jî hinartina terorîzma dewletî bo dervayî sînorên xwe ye. Hem di navxwe da xelk kuştiye, û teror kiriye, û hem jî di welatên derve de ew kar meşandiye.

Terorkirina Dr. Qasimlo li ser maseya diyalogê (13'ê Tîrmeh a 1989'an) û terorkirina Dr. Sadiq Şerefkendî di sala1992'an de, û dadgeha Mîkonos baştirin belgeya terorîzma dewletî ya vê rejîmê ye.

Ew rejîma ne tevî xelkê Îranê aştiyê dixwaze, û ne tevî welatên cîran û cîhane aştiyê dixwaze. Destêweradana vê rejîmê di nav karûbarên Îraq, Sûriye, Lubnan û Felestînê belgeyên vê rastiyê ne.

Em hêvîdar in ew pêvajoya çareseriya pirsa Kurd di Turkiyê da, ber bi serkevtinê ve here, û şer dawî pê bêt. Ji ber ku deskevtên aştiyê hem bo gelê Kurd û hem bo Turkiyê gellek zêdetir in ji wan bedelên ku di şer da ji dest didin.

Em bawer in ger rayedarên Turkiyê bixwazin dikarin bo çareseriya pirsa Kurd û berfirehkirina demokrasiyê di nav welatên Rojhelata Navîn da, roleke pêşeng hebin, û bibin modêla demokrasî û bihevrejiyana netewe û ol û etnîken cuda-cuda.

Bi hêviya serkevtin bo weha paşerojekê, û em dibêjin: Ne bo şer û malwêraniye, ne bo zordestî û asimîlekirinê , belê bo aştî û demokrasiyê, belê bo wekhevî û jiyana bi rûmet.

Li derheq weha rewşekê de, ku niha di Rojhelata Navîn da hatiye pêş, bi berçavgirtina xebata ber bi pêş a tevgera Kurdistanê di hemû parçên xwe da, em weke Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê (PDKÎ), pêdagirî li ser yekîtî û hevkariya hemû hêz û saziyên siyasî û civakî û rewşenbîrî dikin, da ku li ser riha hev qebûlkirin û bi hevra karkirinê, bikaribin di vê dema hestiyar da, di hemberî pîlanên reş yên herêmî û metirsiya girûpên terorîstî da, berevaniyê ji serweriya xelkê Kurdistanê bikin, û bo bidestxistina azadî û mafê Kurdan dest bidin hevûdu.
Serkevtî bin .

**06.09.2014**
**15.06.1393**

## Daxûyaniya Deftera Siyasî ya PDKÎ li derheq êrîşa Dewleta Îslamî bo ser Kobanê




Piştî şikesta Dewleta Îslamî li herêmên Kurdistana Başûr û lêjkirina pêgeha wan ji aliyê Hêzên Pêşmerge yên Kurdistanê ve, terorîst û cinayetkarên Dewleta Îslamî (DAÎŞ) eva du roj e ku êrîşên xwe bo ser Kobanê û derdora wê, di Kurdistana Rojava de çirtir kirine.

Di encama êrîşên wan terorîstan de, bajarê Kobanê di gel rewşeke tewaw ne asayî berbirû bûye, û gundên derdora wê ketine ber reftara hovane ya wan cinayetkaran.

Di encama vê rewşê de heya niha zêdetir ji 5 hezar kes ji akinciyên vê herêmê neçar mane ku mal û halê xwe bi cih bihêlin, û di rewşeke dijwar de jiyan dikin. Bi dirêjîkêşana vê êrîşa hovane wisa dixûye ku rewşa xelkê vê herêmê ji vê hindê jî aloztir pirr metirsîdartir be.

Deftera Siyasî ya PDKÎ tevî şermezarkirina êrîşa Dewleta Îslamî bo ser Kobanê, ew qasê hevsozî, hevxebatî û piştevaniya xwe bo xelkê vê herêmê eşkere dike, û daxwazê ji wan dewlet û aliyan dike ku sînorên xwe bi rûyê awareyan de vekin û erka xwe ya mirovî bi cî bînin.

Deftera Siyasî daxwazê ji hêzên siyasî yên Kurd di Kurdistana Rojava de dike, ku di vê rewşa hestiyar de ku berbirûyê xelkê Kobanê bûye, bi dil û can yekîtiya xwe biparêzin, û pêkve berbirûyê terorîstan bibin. Erka li ser milên hemû xelk û rêkxirawên Kurdî ye ku alîkariya xelkê aware yên Kobanê û derdora wê bikin.

Herwisa daxwazê ji NY û tewahiya kom û komeleyên mirovdost dike ku erka xwe ya mirovî di vî warî de cîbicî bikin, û bi hawara awareyên bajarê Kobanê û derdora wê de herin, ku bûne armanca kiryarên terorîstî yên dewleta Îslamî (DAÎŞ).
PDKÎ

**Deftera Siyasî**
**28.06.1393**
**19.09.2014**

## Deqa peyama rêzdar Hesen Şerefî cihgirê sekreterê giştî yê PDKÎ, di rêûresma 26'ê Xermananê, salvegera terorkirina Dr. Şerefkendî û hevalên wî



**Birêz Hesen Şerefî: "Ew birîna bi jan, di rewşekê de kete ser laşê tevgera Kurd di Kurdistana Îranê û PDKÎ, ku hêşta jî birîna li ser laşê tevgera me bi terorkirina Dr. Qasimlo her bi jan bû".**

**Mêhvanên hêja!**
**Hevalên birêz!**
**Xûşk û birayên hêja!**

Îro 26'ê Xermanana sala 1393'an ya Rojî (17.09.2014), 22 sal bi ser vê bûyera dilêş re derbaz dibe, ku di sala 1992'an (1371'an a Rojî) de, hevrê û mamostayê me yê mezin Dr. Sadiq Şerefkendî di gel kak Fetah Ebdulî, kak Homayon Erdelan û kak Nûrî Dêhkordî hevalê nêzîk ê PDKÎ li pîlaneke terorîstî ya Komara Îslamiya Îranê, di Berlînê de, û di demekê de ku ji bo beşdariya di kongireya Înternasyonala Sosyalîst de çûbû Berlînê, û piştî wê jî qewlê civîna di gel hinek ji kesayetiyên opozisyona Îranî hebû, ji bo gengeşeya li ser rewşa Îranê û organîzekirina opozisyona Îranê di restoraneke vî bajarî bi navê Mîkonosê de, ketin ber êrîşa terorîstên ser bi Komara Îslamiya Îranê û canê wan ji wan hate standin.

Ew birîna bi jan, di rewşekê de kete ser laşê tevgera Kurd di Kurdistana Îranê û PDKÎ, ku hêşta jî birîna li ser laşê tevgera me bi terorkirina Dr. Qasimlo her bi jan bû, lewra carek din, vê xemê per û baskên xwe bi ser hemû xortên neteweya Kurd, heya di hemû parçeyên Kurdistanê de kêşa, lê pêvajoya bûyeran û kêrhatîbûn û pêdagiriya sekreterê giştî yê wê demê yê PDKÎ, Dr. Sadiq Şerefkendî ew derfeta neda ku Komara Îslamiya Îranê bigihîje armancên xwe.

Dr. Sadiq Şerefkendî di 21'ê Befranbara sala 1316'an (1938) de, di gundê Terexe di Bokanê de ji dayîk bû. Temenê wî gellek kêm bû ku bê bav ma. Serperestiya wî kete stûyê birayê wî yê mezin Mamosta Hejar, helbestvanê navdar ê Kurd. Di vir de divêt em bizanin ku ew kesê li ber destê helbestvanê neteweyî bê perwerdekirin, divêt ew zarok, yan ew nûciwan, di pêşerojê de, di nav civakê de bibe xwediyê çi bîr û baweriyekê.

Dr. Şerefkendî xwandina destpêkî û nawendî di bajarên Bokan û Mehabadê, û paşnawendî di Tewrêzê de bi dawî anî. Di hemû vê heyamê de ku ders dixwand, bo hemû aliyekî eşkere bû, ku xwediyê çi hiş û şiyaneke taybetî ye.

Ew di hemû dewrana xwe ya xwandinê de, ya yekemîn bû, yan jî kêm kesên wekî wî hebûn. Ew ji bo domandina xwandinê çû Tehranê û di danişseraya bilind de xwandina xwe domand û di beşa kîmyayê de lîsansa xwe wergirt.

Li wir jî jêhatîbûna xwe nîşan da, bi awayekî ku di beşa kîmiyê de, ew bû yekemîn, lewra borsiyeyek dane wî, ku di derveyî welat xwandina xwe bidomîne, lê îzna mifahwergirtina ji vê borsiyê di destpêkê de nedanê, lewra vegeriya bajarên Kurdistanê, û li Mehabadê zêdetir û li Urmiyê kêmtir



di debîristanan (paşnawendî) de, ders digot.

Di vê heyamê de jî bixwe û hinek ji mamostayên hevbîr di gel wî, bîr ji avakirina yekîtiyeke ne ragehandî kirin, bona vê ku ew qas hewlê di gel xwandekar û dersxwanên Kurd bidin ku rêjeya wan di nav zankoyên Îranê de bi awayekî berçav zêde be, û her wisa jî bû, ew karê wan ew qas berçav bû ku li ber çavên sawakê winda nebû. Lewra hem bixwe û hem jî hevbîrên wî ji bo bajarên nawendî yên Îranê hatin dûrxistin.

Ew borsiyeya ku divêt wî mifah jê wergirtiba, û pê nehate dan, kesek din bû xwediyê wê borsiyê, û ew kes piştî bidawîanîna dersa xwe, vegeriya û di Wezareta Perwerdehiya Bilind de, posteke bilind pê hate dan, û ew hertim nerehet bû ku mafê kesekî kêrhatî binpê kiriye, lewra gellek hewl da ku vê borsiyê zindî bike, û ew kar kir jî, û Dr. Şerefkendî bi vê borsiyê çû Feransayê û li wir doktoraya xwe bi pileyeke bilind di zanîngeha Parîsê de wergirt.

Her li wir bû ku di sala 1352'an di Parîsê de, ji nêzîk ve di gel Dr. Qasimlo nasyar bû (lewra ez dibêjim ji nêz ve, jiber ku wan ji dûr ve yektir her nas dikirin), lê li wir ji nêzîk ve di gel nasyar dibe, û her li wir jî li ser daxwaza Dr. Qasimlo endametiya PDKÎ qebûl kiriye, û ew şanaziya pê hatiye bexşîn. Sala 1352'an dema ku Dr. Şerefkendî endametiya PDKÎ qebûl dike, wê demê di gel vê ku ew wekî kesayetiyekî nîştimanperwer û edaletxwaz ê Kurd hatibû nasîn, lê endamê tu partiyekî din nebû.

Lewra ji vê demê şûnda heya dawî henaseya xwe endamê PDKÎ bû, û bi rê û şopa vê partiyê û bi hevrêtiya di gel Dr. Qasimlo emegdar ma. Piştî wergirtina doktorayê vegeriya Tehranê û li wir weke mamostayê zanîngehê, ew erkên hizbî ku pê hatibû spartin, wekî karê rêkxistinî di nav xwandekaran de bi awayekî veşartî, û herwisa pêwendîgirtina bi wan şareza û rewşenbîran re, ku ji rejîma paşayetiyê dûr ketibûn, bi başî bi cî gehandin, û piştî şoreşa gelên Îranê û vê rewşa ku di Kurdistana Îranê de hate pêş, birêvebiriya PDKÎ daxwaz ji wî kir ku vegere Kurdistanê, û wî jî dev ji jiyan û xweşiyên jiyanê û berpirsayetiya bilind ya di zanîngehê de berda, û hate nav refa kadr û pêşmergeyên PDKÎ de.

Wî gellek zû pileyên wekî endametiya Komîteya Nawendî, û Deftera Siyasî û cihgiriya sekreterê giştî birîn. Di rastî de wergirtina tu yek ji wan postên hizbî, ji bo wî zû nebûn, jiber ku wî nîşan da ku ew xwedî şiyan e.

Ew di hemû wan biryar û helwestên di kongireyên PDKÎ de, (ku renge wê demê li ser demokrasî û mafê neteweyî, hevboçûnî hebûbe, lê di pirsa diyarîkirina armanca pêşerojê de, cudahiya boçûnan hebe, wek sosyalîzma demokratîk ku Dr. Qasimlo ew xiste ber bas), bi tenê cihgirê rastîn yê Dr. Qasimlo nebû, belkû ew hevalekî tewaw qurs û qahîm ê Dr. Qasimlo bû, ji bo cihgirkirina vê bîra demokrasîxwazî, vê bîra neteweyî, û cihgirkirina sosyalîzma demokratîk weke armanca pêşerojê, bi vê mebestê ku xetê PDKÎ ji partiya Tûde bihê cudakirin. Herwisa ew li ser vê baweriyê jî bû ku partiyek nikare ji bo demokrasiyê bixebite, lê alîgirê cureyek ji sosyalîzmê be ku dawiya wê dîktatorî be, vêca bila dîktatoriya piroltariya jî be.
Dr. Şerefkendî xwediyê komeke taybetmendiyan bû, pêdagir û bi bawer bû, wî wext û bê wext ji bo karkirinê tunebû, zana bû, xwedî şiyan bû, rastbîn bû, hemû ew taybetmendî bibûne sedema vê ku ew bikare di her warekî de, di nav PDKÎ de xwediyê boçûn û baweriya taybet bi xwe be, û di hemû warekî de, boçûnên wî di gel boçûnên Dr. Qasimlo li warê hemû pirsên bingehîn wekhev bûn, lewra her tim dibêjim ku Dr. Şerefkendî hevalê emegdar ê Dr. Qasimlo bû, ew sadiq bû, renge kêm car heye ku navek di gel taybetmendiyên kesekî yek bin, wate navê wî Sadiq be, û her wisa jî sedaqeta wî di karê hizbî, di karê mamostatiyê, û di reftara bi hevalên xwe re hebe.

Mixabin ku Dr. Qasimlo hate terorkirin, û Dr. Şerefkendî cihgirê sekreterê giştî jî di kombûneke Komîteya Nawendî de, wekî sekreterê giştî yê PDKÎ hate hilbijartin, ew rewşa ku wî têde ew berpirsayetî wergirt, bixwe nîşaneya vê ye ku çi qas kesayetiyekî xwedî îrade, û bi bawer, û piştqahîm bi xwe ye.

Wî di rewşekê de ew berpirsayetî wergirt, ku hêla xema jidestçûna mamostayê wî, û hevalê wî, ku Dr. Qasimlo bû, bi ser laş û hiş û hemû tiştekê de zal bû. Wî dizanî ku wê here ser kursiyekê ku ew kursiyê Dr. Qasimlo bû. Tejîkirina vê cihê gellek hêsan nibû.

Di gel vê ku wî bawerî bixwe hebû ku dikare gellek karan bike, lê jêve bû ku kesek ku diçe ser cihê Dr. Qasimlo, dibe çavnihêriya xelkê xwe bi cî bîne. Wî gellek caran digot ku ez hêvîdar im ku bi alîkariya hemû hevalan, milên biçûk ên min bikarin vê berpirsayetiya giran tab bikin, û di rastî de karî vê berpirsayetiyê bi rêve bibe.

Herwisa ew axavtina ku di dema şehîdbûna Dr. Qasimlo de kir û got: "Soz be ku emê riya te bidomînin, yan emê serkevin, yan jî emê bêne cem te". Di vir de jî ew emegdariya xwe di gel hizb û di gel Dr. Qasimlo bire ser. Berpirsayetî wergirt, lê wisa ew berpirsayetî bi rêve bir, û wisa lêzanî û şarezayiya xwe nîşan da, ku hekî biryar ba ku hemû endamên PDKÎ bo Komara Îslamiya Îranê bibana armanca terorê, eva Dr. Şerefkendî berî hemû wan armancan bû, lewra Komara Îslamiya Îranê li ser vê baweriyê bû ku li serê tevgera Kurd bide, da ku laşê wê ji kar bikeve.

Dema ku ji Dr. Qasimlo dan, PDKÎ ji kar neket. Rejîmê zanî ku Dr. Şerefkendî heye, lewra PDKÎ neketiye. Vêca li vî serê tevgerê jî dan, lê PDKÎ dîsan neket, birîndar bû, birîn hilgirt, bi xwîn bû, lê nekete qedeman. Eva bû ku pîlana terorê li dijî Dr. Şerefkendî darêtin, û di seferekê de ku ji bo beşdariya di kongireya Înternasyonala Sosyalîst de, çû Berlînê.

Piştî derbazbûna demeke kêm bi ser beşdariya wî di vê civînê de, pîlana terorê di restorana Mîkonosê de bi rêve çû, û mixabin ew şehîd kirin. Kak Fetah Ebdulî hevalê me yê têkoşer û nûnerê PDKÎ li derveyî welat şehîd ket, kak Homayon berpirsê komîteya me li Alman şehîd bû, û hevalên kevnar ê PDKÎ kak Nûrî Dêhkordî şehîd bû.

Her demekê ku em bas ji şehîdkirina Dr. Şerefkendî û hevalên din ên xwe di restorana Mîkonosê de dikin, bo hemû xelkê pêvajoya dadgeha Mîkonosê nû dibe, û berçav dikeve, ku Komara Îslamiya Îranê di piraniyan wan welatên ku teror têde bi rêve biribûn, bi bê xuhdan derdiket.

Rejîmê dizanî, û zêdetir bo wan welatan terorîst dişandin û teror bi rêve dibirin, ku têkiliyên baş ên ticarî bi wan re hebûn, û xatircem bû ku berjewendiyên siyasî yên wan rê nadin ku ew pirs bi tewahî eşkere be, lê dadwerên dezgeha dadweriya Alman û parêzerên wê jî, di gel vê ku di pêş de, rejîma Îranê ji riya Wezareta Karê Derve ya Alman ve xwastin poanan bidin wan dadweran, lê ew hewlên wan bê encam man. Vêca riya gefên bi eşkere û nepenî girtin pêşiya xwe, lê ser neketin, hewla Wezîrê Karê Derve yê Alman ser neket,

Dom R: 6




## Weşana “Ne ji bo Îdamê” ser bi Komîteya navneteweyî ya li dijî îdamê di hejmara xwe ya çaremîn de hevpeyvînek li derheq rewşa niha ya Kurdistanê, di gel birêz Mistefa Hicrî sekreterê giştî yê PDKÎ encam daye. Deqa vê hevpeyvînê weha ye:

**Pirs: Li gorî zanyariyan DAÎŞ ji aliyê Amerîkayê ve ji bo parvekirina cardin ya Rojhilata Navîn hatiye avakirin. Boçûna we di vê derheqê de çi ye?**

**Bersiv:** Hekî ew yek rast be, ku Amerîka dixwaze Rojhiata Navîn cardin dabeş bike, wê demê DAÎŞ ku cinayetkar e nikare emrazek be ji bo vê armancê, ku rewşê ji bo parvekirinê li gorî dilê Amerîkayê xweş bike, bi taybet ku dijminê aştînexwaz ê Amerîkayê, û Rojava û Şîeyan in.

DAÎŞ her çawa ku ragehandine û di piratîkê de jî pêngavên bi bandor hilgirtine, ji bo xelafeta Îslamî-bi pênaseya ku wan ji Îslamê hene- di Rojhilata Navîn de ye, û di vê rastayê de heya niha kariye ku herêmeke berfireh pêkhatî ji çendîn parêzgehên Sunî akincî ên Îraqê di gel hinek ji herêmên Sûriyê bike yek, û niha bi berfirehtirkirina bazineya deshilata xwe di Îraq û Sûriyê de, di halê tekoşînê de ye, û hinek çalakî di Lubnanê de jî encam dane.

Ew form ji pêkanîna xelafeta Îslamiya radîkal, ku dijminê Amerîkayê ye, nikare di rastaya armancên Amerîkayê de bi armanca parvekirina du carî ya Rojhilata Navîn be.

**Pirs: Amerîkayê êrîşên esmanî li dijî DAÎŞ’ê di Îraqê de dest pê kiriye, gelo ew yek dikare çi berjewendiyek ji bo Amerîkayê hebe. Piştperdeya wan bûyeran çi ye?**

**Bersiv:** Êrîşên esmanî yên Amerîkayê bandoreke berçav di wergirtina herêmên ku li encama êrşên DAÎŞ’ê de ketibûn destê wan de, hebûye, û ew yek dikare ji bo Amerîkayê aliyê kêm ew berjewendî hebin:

-Di dema vegeriyana hêzên Amerîkayê ji Îraqê, piştî hiloşîna rejîma Sedam husên, Amerîkayê hez dikir ku hinek ji hêzên xwe di Îraqê de bi cih bihêle, lê hikûmeta Îraqê li jêr zexta Komara Îslamiya Îranê de, ew îzn neda Amerîkayiyan, lê niha hikûmeta Îraqê li gorî hewcehiyê, ew hizûra bi awayekî qebûl kiriye.

- DAÎŞ bû metirsiyek li ser Hikûmeta Herêma Kurdistanê, ew Hikûmeta jî di warê forma xwe ya îdarî de, weke berfirehkirina azadiyê, ber bi hikûmeteke demokratîk ve diçe pêş, ku armancên hevpar ên zêde di gel Rojava, û bi taybetî Amerîkayê hene, lewra Amerîkayê bi van alîkariyên leşkerî, yek ji hikûmetên dost ên xwe ji metirsiya hiloşînê rizgar kiriye.

Amerîka di herêma otonom ya Kurdistanê de, xwediyê nawenda konsolxaneyên tîcarî û ...hwd ye, ku bi kiryarên xwe, ew ji metirsiya DAÎŞ rizgar kirin, û bi raya min ji vê giringtir ew e ku cardin hêz û şiyana siyasî û leşkeriya xwe di warê berevanî ji dostên xwe û bandora xwe ya di Rojhilata Navîn de bi kiryar selimand.

**Pirs: Gelo bi raya we eva ducarîbûna dîrokê nine? Heman bûyera ku ji bo xelkê Îranê di sala 1979’an de rû da. Sê dehikên berî niha DAÎŞ’ek li ser Îranê de zal kirin, niha dixwazin senaryoyeke bi vî rengî di Sûriye û Îraqê de bi rêve bibin?**

**Bersiv:** Bi raya min dema vê hatiye ku Îranî xwe ji destê “şik û gumana pîlanan” rizgar bikin, ku bi dehan salî ye bûye koltora vî xelkî, û her kiryarek ne bi dilê xwe bixin stûyê Amerîkayê û ...hwd.

Bi vê armancê ku bixwazin biselimînin ku ew bixwe ne tawanbar in, û bi vî awayî bi zanabûna xwe û bîrmendiya xwe şanaziyê bikin. Hekî piştî şoreşa sala 1979’an DAÎŞ’ek bi ser Îranê de zal bû, eva Îranî bixwe bûn ku hemû rewşên hizrî ji bo wan amade kirin, her ew bûn ku wêneyên Xumêynî di nav heyvê de didîtin, û niha nêzîkî 36 sala ye, ku tawana vê şaşiyê didin, û hêla jî ne diyar e ku heya çi demekê vê tawanê bidin, û piştî derbazbûna sê dehikan niha jî siyasetvan û rewşenbîrên nerazî ji rejîmê, di xema derbazbûyî de ne.

Li Îraqê binihêrin, piştî hiloşîna Sedam, Kurdan karî serbarê hemû kêşeyên li ser riya xwe, li ser wêraneyên welatê xwe hikûmeteke herêmî ya demokratîk ava bikin, û bikevin nav pêvajoya demokrasiyê, û di Îraqê de ku bûye dojeha xelkê wê, nan û kar û azadiyê bi dest bînin, di demekê de ku ser’erdê din yê Îraqê di nav agirê demargirjiyên tayifî, û nezanînê de dişewite.

Di encamê de DAÎŞ’ên Îran û Îraqê rewş ji bo zêdekirina bazineyea nifûza xwe amade dikin, lewra pêwîst e ku em li xwe binêrin û bizanin ku her çi me heye, baş yan xirap, afirandiyê hiş û zanîna me ye, ne ya aliyên din.

**Pirs: Dawî guhertinên ku di Sûriye û Îraqê de rû dane çi bûne, û boçûna we li ser vê rewşê çiye?**

**Bersiv:** Ji wan guherînkariyên Îraqê em dikarin qala pirsa DAÎŞ’ê bikin, ku serbarê vê ku hêzên pêşmerge û xelkê Kurdistanê bi cangorîtiya rojane vê bellayê ji xwe dûr dikin, lê di cihên din ên xaka Îraqê de, berxwedaniyeke wisa di hemberî xwe de nabînin, lewra herêmên di bin deshilata xwe de berfire dikin. Li arteşa Îraqê de hesta nîştimanperwerî ji bo parastina nîştiman gihaye asta xwe ya herî kêm, û kesên ser bi arteşê, her yek ji wan girêdayî bi girûpeke eşîretî û mesebî ne, weke arteşeke yekgirtî û serûber nahên dîtin, lewra ez li ser vê baweriyê me ku fitneya DAÎŞ’ê bi van zûkatiya di Îraqê de bidawî nahê, herçend ku niha hemû çav li hikûmeta nû ne, ku biryar e serokwezîrê nû, wate Îbadî vê hikûmetê pêk bîne, û tu sedemek tuneye ku ev îmamzade jî mu’cizeyekê bike, lewa nabe em ji bîr bikin ku nifûza Îranê di Îraqê de astengiya herî mezin li ser nebûna aramiyê di vî welatî de ye, jiber ku berjewendiyên wî welatî bi şerê navxweyî, û pêkanîna ajawegêriyê di herêmê de, bi taybetî di welatên cîran de ser digre, û hekî di Îraqê de aramî hebe, û yekîtî çê be, eva Komara Îslamiya Îranê divêt mala xwe ji vî warî bar bike. Di Sûriyê de jî em dibînin ku rewş xiraptir e, û carê DAÎŞ di pêşveçûnê de ye.

**Pirs: Piştî êrêşa DAÎŞ’ê bo ser Îraqê û dagîrkirina Mûsilê û herwisa paşvekêşeya arteşa Îraqê ji Mûsil û Kerkûkê, pêşmergeyên Kurdistanê karîn ku Kerkûkê bigrin jêr deshilata xwe, û sînorên wê biparêzin, ew bûyer bûne sedema vê ku gengeşeya li ser serxwebûna Kurdistanê di nav hêzên Mesûd Barzanî û Celal Talebanî de çê be. Rewş çiqas ji bo serxwebûna Kurdistanê amade ye, û xelkê çi bedîlek ji bo jiyaneke baştir**

**hene? Helwesta we di vê derheqê de çi ye?**

**Bersiv:** Eva nêzî bîst sala ye ku Hikûmeta Herêma Kurdistanê pêk hatiye, û vê hikûmetê her tim hewl daye ku li gorî yasaya bingehîn kêşeyên xwe di gel Bexdayê çareser bike, lê di tewahiya vê heyamê de hikûmeta Bexdayê karşikênî kiriye, û astengî li ser riya wan pêk anîne.

Di dawî kiryara bi vî rengî de, hikûmeta Îraqê bûdceya yasayî ya Herêma Kurdistanê di destpêka sala nû ya Zayînî de ragirtiye, û bi vî rengî kêşeyên zaf yên aborî û civakî ji bo Kurdistanê pêk aniye, her wek ku ez agehdar im, niha jî hekî heq û hiqûqên yasayî yên hikûmeta Herêma Kurdistanê, berçav bêne girtin, û dewleta Bexdayê siyaseta nermbûnê li gel Kurdistanê bigre pêşiya xwe, wek ya ku li hemberî Erebên Sunî de niha girtiye pêşiya xwe, wê demê ew amade ne ku di çarçoveya Îraqê de bin.

Hekî Kurd daxwazkarê serbixweyiyê ne, eva riyeke ku Bexdayê di du dehikan de daniye pêşberî wan, lewra bi raya min hekî li ser heman nuqteyî bizivirin, Kurd li ser serbixweyiya xwe wê zêdetir pêdagiriyê bikin, gelo ew xwestek wê çawa ser bigre, eva behseke têr û tejî dixwaze.

**Pirs: Piştî dagirkirina Mûsilê ji aliyê DAÎŞ'ê ve, şerê DAÎŞ'ê li gel Bexdayê bû, lê piştre DAÎŞ'ê eniya şerê xwe guherî, û bera êrîşên xwe da Kurdistanê, û li Şingal û Mexmûrê kuştareke bê rehmane encamê da, ew yek çima wisa lê hat?**

**Bersiv:** Guherîna helwesta DAÎŞ û guherîna bereya şer, gellek kêşe ji bo Hikûmeta Herêma Kurdistanê û her wisa tewahiya xelkê Kurdistanê pêk anî, lê di hemberî Kurdan de nekarîn ji vê rewşa pêşhatî bi başî mifahê bistînin, ji aliyekî ve bala cîhanê bi taybetî Rojavayiyan bo aliyê xwe rakêşan, û di vê biyavê de karîn ku gellek çekên pêşkevtî wergirin, û helwesta Kurdan û berxwedaniya wan ya di hemberî DAÎŞ'ê de bikin serhêla nûçeyên cîhanê.

Ji aliyekî din ve yekîtiya neteweyî ya bê mînak di navbera Kurdan li raserî cîhanê û li her çar parên Kurdistanê de pêk hat.

Bi awayekî ku hêzên çekdar ên hemû beşên Kurdistanê bi coşeke mezin ve, mil bi milê pêşmergeyên Kurd ên Îraqê di eniyên şer li dijî DAÎŞ'ê de beşdarî kirin, lê di derheqê êrîşên DAÎŞ'ê bo ser Kurdistanê bi raya min Komara Îslamiya Îranê roleke bi bandor lîst, jiber ku Komara Îslamiya Îranê, bi sedan kesên xwe di nav hêzên DAÎŞ'ê de bi cî kiriye, ew kesên nifûzî, di guherîna êrîşa DAÎŞ'ê bo ser Kurdistanê de, bi bandor bûne, û armanca wan ji vî karî cezakirina seranên herêmê bi taybetî Barzanî bû, ku weke serokê Herêmê zêde ji hemiyan pirsa serxwebûna Kurdistanê dianî pêş, û ji aliyekî din ve navbirî pêwendiyeke baş di gel Tirkiye û Rojav pêk aniye, lewra tu yek ji wan bi qazancê rejîma Îranê nînin, û bi taybetî ku ew rejîma gellek ji serxwebûna Kurdistanê ditirsiya, û em hemû dizanin ku seranên hikûmeta Îranê bi awayekî dijberiya xwe bi serxwebûna Kurdistanê re ragehandine, û yek ji cihgirên Wezareta Karûbarên Derve yê Îranê ragehand ku hekî Herêma Kurdistanê vê riyê bixwaze bidomîne, wê poşman bibe, ku ew yek bixwe gefxwarineke bi eşkere bû.

**Pirs: Di Kurdistana Sûriyê de DAÎŞ'ê êrîşên berfireh dest pê kirine, û di bajarê Kobanê de pevçûna herî zêde di navbera DAÎŞ û xelkê kobanê de bûye, di heman demê de ew pevçûn di Şingalê de jî rû dane, û xelkekî zaf di van herêman de yan îdam kirin, yan jî di dema revînê de, ji birsîtiyê mirin, gelo pêwendiya van êrîşên bo ser Şingal û Kobanê çi bûye, gelo tu senaryoyek li piş vê pirsê ye?**

**Bersiv:** Ji bo DAÎŞ'ê pirr giring e ku wan herêmên di bin deshilata xwe de, nêzî hevdu bike, û sînorên heyî rake û bi bê tu astengiyekê hatûçûyê bike, û dagîrkirina Mûsilê ew pilana DAÎŞ'ê pêk anî, û şerê wan yê li Kobanê û Şingalê rast di vê çarçoveyê de bû, û ji stratejiya leşkerî û berfirehkirina riyên pêwendiyê di navbera Kurdistana Sûriyê û Herêmên din de bû.

Beşeke din ya wan êrîşan jî ku girêdayî ye bi êrîşa li ser Şingalê, pêwendiya wê bi cîbicîkirina siyasetên Komara Îslamiya Îranê ve heye.

**Pirs: Her wek ku hûn agehdar in, DAÎŞ'ê jinên Mesîhî û Îzedî weke xenîmetên şer bi xwe re birin, û niha wan difiroşin, hûn di vê derheqê de çi dibêjin?**

**Bersiv:** Reftara hovane ya hêzên DAÎŞ'ê li dijî jin û zarokên xeynî Misilman ji aliyê me ve hate şermezarkirin. Me di daxûyaniyekê de wek Deftera Siyasî ya PDKÎ ew êrîş pirotesto kir.

**Pirs: Xelk ji bo rizgarbûna ji destê DAÎŞ'ê, dibe çi bikin? Gelo bi êrîşa leşkerî ewê ji nav herin, yan jî kiryarên din hewce ne?**

**Bersiv:** Êrîşên leşkerî ji bo lawazkirina wan hewce ne, lê têrê nake. Belkû di gel wan êrîşan dibe ku hikûmetên xelkî û demokratîk di Rojhilata Navîn de bêne avakirin, da ku DAÎŞ ya her hêzeke din ya li dijî xelkê, nekare ji rewşa ku di encama nerizayetiya xelkê û serkuta wan ji aliyê deshilatên serberedayî ve pêk tê, bi qazanca xwe mifahê wergirin.

Me dît ku bi sedema vê zext û zoriya ku xelkê Sunî di Îraqê de ji destê hikûmetên serberedayî dîtibûn, pêşwazî ji DAÎŞ'ê kirin, û xwastin bi vî rengî ji destê hikûmeta serberedayî ya Malikî rizgar bin.

Di rastî de em dibînin jiber ku di welatên Rojhilata Navîn de, aramî û azadî tuneye, girûpên weke wê û girûpên din ên terorîstî çalak dibin. Xelk hekî azad be, û di diyarîkirina qedera xwe de beşdar be, û welat yê hemiyan be, û xelk hemû xwe xwediyê vî welatî bizanin, wê demê ne tenê DAÎŞ nikare çalakiyan bike, belkû wê demê xelk bixwe, wê ji malên xwe berevaniyê bikin.

**Pirs: Erka li ser milên civaka navneteweyî, li derheq vê rewşa ku niha di Îraq û Sûriyê de heye çiye, û divêt çi bikin?**

**Bersiv:** Erka li ser milên civaka navneteweyî û bi taybetî Rojava eva ye ku hekî ne aramî di welatên Rojhilata Navîn de çê bûn, bi lez bi hawara hêzên demokrat de bên, û berî bihêzbûna van hêzan, bikarin wan ji nav bibin.

Hekî di Sûriyê de, Rojava di dema xwe de kar kiriba, ne Beşar Esed dikarî take hêza di qadê de be, û berdewamiyê bide kuştarê, û ne jî hêzên weke DAÎŞ û Komara Îslamî û hêzên din ên terorîstî dikarîn di vî welatî de bi hêz bibin, û li wir bo her tim bimînin.

---

Doma R: 4

û serbixweyiya dezgeha dadweriya Alman û cesûriya dadweran di encamê de, di dadgehekê de ku demeke zêde bir, xerceke zaf bo dewleta Alman hebû, lê encama wê ew bû ku mohra terorîzmê li nav çavên rejîma terorîst û terorîstperwer a Komara Îslamî li asta herî serê de dan.

Ewropa helwest girt, û balyozên xwe vekişandin, herçend ku heyameke zaf nekêşa ku cardin balyozên xwe şandin Îranê, lê ew helwesta sembolîk encama wê du tişt bûn: Ya yekemîn, ew welatên Ewropayî piştî vî hukmî di reftara xwe ya bi Komara Îslamî re, bi parêz ve refar dikirin, û ya duyemîn jî ew bû ku bû sedema vê ku tirombêla terorîzma Komara Îslmaî di Ewropa de bisekine. Rast e ku encama vê dadgehê şehîdên me zindî nekirin, lê nehêla ku bikuj û biryarderên vê terorê bê xuhdan derkevin.

Her di pêvajoya vê dadgehê de ku li Alman de bû, rêzbendek eşkere bû ku navê hejmareke berçav ya kesayetiyên opozisyona Îranî li derveyî welat têde bû, ku ew di bernameya terorê ya Komara Îslamiya Îranê de bûn. Bi eşkerebûna vê rêzbendê yan rêzbendên din ku renge hêla eşkere nebibin, hemû yên ku di vê rêzbendê de bûn, piştî vê terorê karîn ku jiyana xwe bidomînin, û ji vê metirsiyê rizgar bin, wate hekî bi rastbînî ve ew lê binihêrin, divêt jiyana xwe ya niha deyndarê xwîna qurbaniyên PDKÎ û biryara bi cî ya dezgeha daweriya Alman bizanin.

Hevalno! Îro di gel vê ku me gellek rêber û gellek kes û gellek kesayetî di nav PDKÎ de, bi destê terorîzma Komara Îslamî ji dest dane, lê di gel wan hemû astengiyên ku ketine ser riya PDKÎ û tevgera me, lê em niha serbilind in, serbilind in ku me riya van rêberan, van şehîdan domandiye, û heya vir me aniye, bi van taybetmendiyên ku armanca wan bû, û rêbaza wan bû, û wan em ber bi vê rêbazê ve han dan, û ew rêbaz xistin pêşberî me. Dadgeha Mîkonosê rejîmek riswa kir, lê terorîzm binbir nebû, heya terorîzma Komara Îslamî jî.

Rojhilata Navîn, ew herêma ye ku yan hertim bi kêşe bûye, yan bi sedema taybetmendiyên xwe ve û pirr kêşe bûye, niha pirrkêşetir û aloztir e, jiber ku taqmeke terorîstî ya bi navê DAÎŞ di Sûriye û Îraqê de, cinayetan diafirîne, lewra niha em dibînin ku hevalbendiyek ji dehan dewletan pêk hatiye ku li dijî DAÎŞ bikeve nav xebateke berdewam de, eva pêngaveke pîroz e, lê çawa dikare serkeve, yekem berdewamiya vê hevalbendiyê ye, ya duyemîn jî komnebûna vê hevalbendiyê li ser tenê girûpeke terorîstî ye.

Li El-qaîdeyê dan, DAÎŞ çê bû, rêkxirawên din jê çû bûn, lewra divêt ew hevalbendiya bi giştî li dijî terorîzmê be, û hekî eva be, Komara Îslamiya

Dom R:7

# Nerîna Lîderan



Mesûd Barzanî

**“Divê zanayên olî nehêlin ciwan ber bi tundûtîjiyê ve biçin”.**



Nêçîrvan Barzanî

**“Em nabin dîlê Bexdayê”.**



Enwer Muslim

**“Pêwîstiya Kobanê bi xwarin û vexwarinê nîne. bi piştgiriya birayên me yên Kurd heye”.**



Kerry:

**“Bexda divê desthilateke zêdetir bide Kurdistanê”.**



Doma R:6

Îranê li gorî hemû pirensîpekê divêt bibe armanca vê hevalbendiyê, çima? DAÎŞ’ê çi kiriye ku Komara Îslamî nekiriye? Destdirêjiya cinsî kiriye ser keç û jinan, di Komara Îslamiya Îranê de, destdirêjî kirine ser çendîn keç û jinên Kurd di girtîgehan de, û piştre pasdar jî bi qutiyeke şîrîniyan ve dişandin mala bavê keçê, da ku bêje wan ku ez zawayê we me.

Hekî DAÎŞ di bazineyeke berteng de, wate di Sûriye û Îraqê de kuştarê dike, Komara Îslamiya Îranê di navxwe ya welat de, bi berfirehiya hemû cîhanê, karê terorîstî dike, hekî DAÎŞ xelkê aware dike, Komara Îslamiya Îranê gellek zêdetir ji wan, Îraniyan neçar dike ku bo derveyî welat aware bin.

Komara Îslamiya Îranê di sala 1988’an de, çend hezar girtî di girtîgehên xwe de, ku hatibûne dadgehîkirin, û hukm bi ser wan de hatibû sepandin, û li bereberê azadkirinê de bûn, îdam kirin, çima? Jiber ku baweriya wan ji ya Komara Îslamiya Îranê cuda bû. Ya ku DAÎŞ dike eva ye ku her kes ew baweriya ku DAÎŞ’ê bixwe ji bo xwe çê kiriye, hekî ew bawerî tunebe dikuje.

Di Herêma Kurdistanê de, DAÎŞ kuştarê dike, di Kurdistana Rojhilat de Komara Îslamiya Îranê çendîn komkujî kirin, melayê gund li pêşberî xelkê, ku Qur’an di desta de bû, dane ber gulleyan, renge hekî ez bêjim DAÎŞ hemû wan tiştan dike ku ji Komara Îslamiya Îranê fêr bûye, min zêderewî nekiribe, ku wisa bû pêkhateyeke cîhanî ku dixwaze li dijî diyardeyeke kirêt xebatê bike, divêt li dijî hemû diyardeyê bi awayekî giştî xebatê bike, ne tenê xebatê li dijî mînakek ji wan hemû mînakan bike.

Li dijî Eî-qaîdeyê şer hate kirin, ew tewaw nebûn, renge nekarin DAÎŞ jî bi dawî bînin, lê hekî li dijî terorîzmê bi giştî şer bikin, hekî terorîzm tewaw jî nebe, wê ew qas lawaz be, ku nekare wek niha çalakiyan bike. Komara Îslamiya Îranê wisa nîşan dide, yan hin alî dixwazin ku bêjin Komara Îslamî hatiye da ku di Îraqê de, li dijî DAÎŞ’ê, û li dijî terorîzmê şer bike.

Hevlno! Komara Îslamî li dijî DAÎŞ’ê şer dike, lê ew şer ne bi sedema vê ye ku DAÎŞ terorîst e, belkû ew li dijî DAÎŞ şer dikin, jibr ku DAÎŞ tiştek biçûk e, di nav tişteke mezitir ya Sunî de, ku mafê wan hatiye binpêkirin, û Erebê Sunî ne jî. Ji aliyekî din ve Erebên Sunî ku ji binpêkirina mafê xwe ji aliyê hikûmeta xwe ve nerazî ne, hevdem xwazyarê bidawîanîna nifûz û deshilata Komara Îslamiya Îranê di Îraqê de ne, lewra ew dizanin ku serkevtina Suniyan çi bi navê DAÎŞ yan bi navê Suniyan be, wê bibe asteng li pêşiya vê nifûza ku wan di Îraqê de heye.

Ew dixwazin ku destêwerdana wan di Îraqê de berdewam bike. Niha di vê hevalbendiyê de cihê vê rejîmê nebûye, çima? Jiber ku berî hemiyan deh welatên Erebî dibêjin ku em di gel rejîmekê hevalbendiyê pêk naînin ku bixwe mohra terorîzmê li ser çavên wê ye, û di hemû welatên me de, her girûpek hevhizr û hev olê wê be, li dijî deshilata me wan tûj dike, terorê bi wan dide kirin, xirapkariyê bi wan dide kirin, tevdanîkariyê bi wan dide kirin, lewra em amade nînin ku bi wan re di eniyekê de bin.

Pêştir Amerîkayê ragehand ku renge hêzên wan yên leşkerî di Îraqê de, li gel fermandarên Îranî alîkarî û hevahengiyê bikin, û Îranê jî fermandarên xwe di vê derheqê de ji bo alîkariyê agehdar kiribûn, lê niha ku di vê hevalbendiyê de nine, dijayetiyê dike, çima dijayetiyê dike? Jiber ku ew hêzên ku ji vê hevalbandiyê tên, û di Îarqê de cihgir dibin, rewşekê di Îraqê de pêk tînin, ku DAÎŞ êdî nemîne, yan lawaz be, û Suniyan rewşek hebin ku wek niha mafê wan nehê binpêkirin, û Kurd jî di rewşeke wisa de bin, ku hisabeke wisa ji bo hikûmeta nawendî nekin, ew hemû xalên ku me bas kirin, dibin sedema vê ku deshilata Komara Îslamiya Îranê di Îraqê û di Herêma Kurdistanê de jî, heya radeyekê kurt lawaz be, lewra pê nerehet dibe.

Ew şerê ku Komara Îslamî dike, şerê terorê nine, şer e ji bo mana nifûza xwe di Îraqê de. Di her cihekî vê cîhanê de, û di her parzemînekê de, çend welatek hene ku hawara wan bilind dibe, ku Komara Îslamî karên terorîstî kirine, serwerî binpê kiriye, teqînewe kirine, kuştar kiriye.

Rejîmek ku bi çeka xwe, bi pasdarên xwe, ji bo berevanî ji dîktatorekî wek Beşar Esed, bi dehan hezra kes ji xelkê vî welatî dikuje, çawa dikare li dijî terorê xebatê bike!. Em hêvîdar in ku ew hevalbendiya berdewam be, û di pêvajoya karê xwe de, ber bi vê here ku li dijî terorê bi giştî, û terorîstperweran bi giştî di herêmê de pêngavan hilgire. Lê hekî bi tenê li dijî girûpeke terorîstî pêngavan hilgire, renge bikare wê lawaz bike, lê nikare terorîzmê binbir bike.

Di vê boneyê de, ez zêde serê we naêşînim, îznê bidin ku li ser navê we hemiyan, silavan bişînim bo riha pak ya Dr. Şerefkendî, sekreterê giştî yê wê demê yê PDKÎ, û qurbaniyê terorîzma Komara Îslamiya Îranê, û herwisa Kak Fetah Ebdulî, kak Homayon Erdelan û kak Nûrî Dêhkordî û bo riha pak ya hemû şehîdên riya azadiya Kurd û Kurdistanê.

Em hêvîdar in ku PDKÎ, tevgera me, birînên bi vî awayî hilnegire, û xwîna bi vî awayî ji PDKÎ neçe, û encama xebata me, û pêdagiriya me li ser rêbaza şehîdên me, me bigehîne vê cihê, ku em bikarin hêvî û mirazên wan bi cî bînin, û di hemberî xortên neteweya xwe de serbilind û serkevtî bin.

# *Birêz Selîm Seyad kurê Kerîmxan, sala 1943(1322'an) li gundê "Yêkşeve" ya ser bi bajarê Bokanê, di malbateke şoreşvan, rewşenbîr û hunerdost de tê dinê.*






## H: Arif Vêlzî

Selîm Seyad nasyariya xwe tevî PDKÎ weha tîne ziman û dibêje: "Di Dema avabûna Komara Kurdistanê de ez 3 salî bûm. Di vî temenî de rast e mirov zarok e û gellek tişt nahên bîra mirov, lê hinek bûyer weke xewnekê tên bîra min.

Di serdema Komara Kurdistanê de Yekîtiya Lawan di gundê me wate Yêkşevê de bû, kogeha çek û teqemeniyên Komara Kurdistanê jî li gundê me bû, û çek didan endamên lawan û rojane perwerdeya leşkirî didane wan.

Eva despêka nasyariya min bi PDKÎ re bû, lê sedema sereke ya baş nasîna min ev e ku piştî herifîna Komara Kurdistanê, 11 kesên ser bi hoza Feyzolla Begî ku hemû fermande û karbidestên Komaranê bûn, li bajarê seqizê û mamê min bi navê "Elî Begê Şêrzad" fermandeyê hêza Bokanê di serdema Komara Kurdistanê li bajarê Bokanê, hatin darvekirin. Piştî vê bûyerê hertim dîvexana me cihê kombûna xelkê Kurd û şoreşgêran bû, û basa Komara Kurdistanê û şehîdên Komarê dikirin, bi vî awayî min PDKÎ bi başî nas kir".

Selîm Seyad tevlîbûna xwe bi refên pêşmergên PDKÎ re weha tîne ziman û dibêje: "Sala 1969(1348'an) ez birêveberê şirketa Muxabirat a bajarê Bokanê bûm, piştî heyamekê her bi vê berpirsatiyê ve ez şandim bajarê Nexedê.

Li bajarê nexedê têkiliyên min tevî çend kesên weke Seîd kwêstanî û mela Sadiq Pîşnemaz û Ebdulkerîm Paksirişt û ...hwd çêbû, ku hemû bi awayê fermî endamê PDKÎ bûn û bi sedema karên siyasî û endametiya di PDKÎ de, hatibûn zîndanîkirin. Rast e malbata min malbatek hizbî û şoreşvan bûn, lê têkiliya tevî wan kesan pitir ez tevî siyaset û bername û pirogramên PDKÎ nasyar kirim".

Selîm Seyad roja herî xweş a jiyana pêşmergatiya xwe weha tîne ziman: "Sala 1979(1358'an) ez birêveberê Muxabirata bajarê Nexedê bûm, ez haydar kirim ku wê mîtînga bajarê Nexedê bê lidarxistin, min karûbarên mîtîngê rêk xistin, û mêhvanên dûr û nêzîk gazî kirin. Mixabin mîtîng têk çû û ez vegeriyam mal, cîranek me hebû ku min dizanî ew jî endamê PDK Îranê ye, navbirî hat û got kesek di mala min de ye ku dixwaze te bibîne û karek wî heye, gereke tu jêre cîbicî bikî.

Ez çûm mala navbirî û min dît kesek rûniştibû, min silav kir û li kêleka wî rûniştim, xwediyê malê got wisa dixûye ku tu mêhvanê min nas nekî, min jî got mixabin heya niha di xizmeta wî de nebûme, xwediyê malê got mêhvanê min Dr. Qasimlo ye, wî çaxî ez rabûm û min Dr. Qasimlo ramûsî, û daxwaza lêborînê jê kir.

Dr. Qasimlo got ez dixwazim bi her awayekî be tevî Deftera Siyasî ya partiyê li bajarê Mihabadê peywendiyekê bigirim û eva jî jimare telefûna defterê ye, min bilez û piştî çend xulekan peywendî girt û Dr. Qasimlo peyama xwe da, û piştî vexwarina çayekê spasiya xwe derbirî û çû.

Eva roja herî xweş û hinek nexweş a jiyana min bû. Nexweşî ji ber vê yekê bû ku Mîtînga Nexedê tevî aloziyê berbirû bû, û encama wê jî bûye şer, lê xweşiya wê di vê yekê de bû ku bo cara yekemîn min ji nêzîk ve Dr. Qasimlo dît, û min karek weha girîng jêre cîbicî kir".

Selîm Seyad roja herî nexweş a jiyana xwe weha tîne ziman: "Sala1989(1368'an) karê min yê hizbî li bajarê Hewlêrê bû, roja Înê bona karê hizbî vegeriyam binkeya Deftera Siyasî li Qndîl, dema çûm nav baregeh û meqerên partiya me, ez heyirîm! tu kes diyar nebû û bêdengiyê dest bi ser dinyayê de girtibû, piştre çûme odeya kadrên Tedarokatê û min dît ku hemû mat û xembar û bêdeng in, min pirsyar kir gelo çi qewmiye ku hûn wusa mat û xemgîn in? Gotin çima tu nizanî? Min got ne! Çi qewmî ye? Gotin Dr. Qasimlo şehîd kirin, dema min bihîst bawer bikin, rewşa min pirr xirap bû, weke vê ku sekteya mêjiyê li min dabe, min haj xwe nema heya çend xulekan,

> **"Bawer bikin hekî hemû xizm û kesên min bi hevre ji nav çûbana, ez bi vî qasî dilgiran û aciz nedibûm".**

û dema av dane min, cardin ez hatim ser hişê xwe.

Bawer bikin hekî hemû xizm û kesên min bi hevre ji nav çûbana, ez bi vî qasî dilgiran û aciz nedibûm, eva roja herî nexweş a jiyana min e ku tu caran ji bîra min naçe".

Selîm Seyad derheq jiyana xwe ya hevpar jî dibêje: "Min sala 1966(1345'an) her li gundê Yekşevê piştî 7 şev û 7 roj govend û dîlana berdewam bi Dihol û Zirneyê, tevî keça mamê xwe bi navê Amîn Şêrzad jiyana hevpar ava kir û berhema jiyana me ji, keçek û du kur in".

Selîm Seyad temen û ezmûna pêşmergatiya xwe dike peyamek û bi vî awayî ji xelkê Kurdistanê re dişîne: "Min hêvî dixwast ku temenê min bi awayekî ba ku min karîba, her di despêka şoreşa rizgarîxwaziya Kurdistana Rojhilatê de bi rêberiya PDKÎ, pêşmergê vê partiyê bam, jiber ku bi qasekê şanaziyê bi pêşmergatiya xwe dikim, şanaziyê bi tu tiştek din nakim. Lewra hêvî dikim ku şanaziya han bibe nisîbê her kesekî".
Selîm Seyad bi vê hêviyê dawiyê bi hevpeyvîna xwe tîne: "Piştî wan hemû salên ku min temenê xwe di nava refên PDKÎ de derbaz kir, take hêviya min rizgariya Kurdistanê ye, jiber ku PDKÎ hemû tiştek daye min".



**Arif Vêlzî**




# 21’ê Îlonê roja ku qet ji bo gelê Kurd aramî li pey xwe neanî

Aramî, ewlehî û pêkvejiyan, sê têgeh in ku her ji demên kevnar ve gellek kes û aliyan, û nawend û rêkxirawên navdewletî hewla dabînkirina wan di sertaserî cîhanî de dane, û didin.

Encama wê jî ew e ku di gellek cih û herêmên cîhanê de ew hewlane serkevtî bûn, û rewreweya jiyanê li jêr siya aramî û ewlehî û pêkvejiyanê de, bi başî riya xwe dipîve, lê mixabin di gellek ciyan de, hêla jî hewlên wan bê encam in û hêla jî ew sê têgeh kêmreng yan jî ne xûya ne.

Her di vê rastayê de bû ku NY, di meha Septambera sala 1982’an de, roja 21’ê Septamberê weke roja cîhanî ya aştiyê diyarî kir, û ji wê demê şûnda em dibînin ku ji bo rêzgirtin ji vê rojê her sal kombûnên curbicur di her cihekî cîhanê de pêk tên, da ku giringiya wê rojê û têgeha aştiyê ji bo hemû aliyekî eşkere be.

Lê mixabin îsal jî, û di bereberê rojeke bi vî awayî de em dibînin ku di gellek welatên cîhanê de bi sedema kêşeyên navxweyî û destêwerdanên derekî, şer û pevçûn û alozî, jiyana rojane ya xelkê têk daye.

Bo mînak destêwerdanên komara Îslamiya Îranê di nava karûbarên navxweyî ên welatên wek Lubnan, Yemen, Sûriye, Felestîn, Îraq û ...hwd, aramî ewlehî û pêkvejiyana di Rojhilata Navîn de bi tewahî aloz kiriye û têk biriye, û bûye sedema vê ku rojane bi sedan kes ji xelkê bê tawan ên wan welatan bibin goriyê siyasetên Komara Îslamiya Îranê. Eva di demekê de ye ku li rex wan destêwerdanan de, geşepêdana bernameya navikî jî bi gefeke micid bo ser aştiya giştî ya cîhanê tê hesibandin, û cihê nîgeraniya civaka navdewletî ye.

Destêwerdanên Komara Îslamiya Îranê ku zêdetir bi piştevaniya hemû aliyane ya hikûmetên dîktator û girûpên tundrew û binajoxwaz xwe derxistiye, bûye sedema vê ku di gellek cihan pirensîpên aştî û pêkvejiyanê bêne binpêkirin, û şer û pevçûn bi ser aştî û danûstandinan de zal be, û di encamê de awareyî û derbiderî û kuşt û kuştara wan hemû jin û zarokan lê bikeve, ku rojane em ji dezgehên ragehandinê dibînin û dibihîsin.

Hekî bê û zêdetir ji mijara binajoxwaziyê û têkdana pêkvejiyanê û aloziyên herêmê hûr bin, mînaka herî berçav gefa Dewleta Îslamî ya li Îraq û Şam naskirî bi DAÎŞ’ê ye bo ser Îraqê bi giştî û bi taybetî di Herêma Kurdistanê û Kurdistana Rojava, ku di vir de jî dûr nine ku destê Komara Îslamî di rêkxistina vê girûpê de, ji bo karê terorîstî û têkderane hebe, bi taybetî ji bo veşartina kêşeyên navxweyî û derek ên xwe, û hevalbendên xwe di Bexda û Şamê de.

Di vê êrîşa DAÎŞ’ê de, ku di herêmekê bi dirêjahiya zêdetir ji 1000 kîlometrî de, bo ser xaka Kurdistanê bi rêve çû, bi sedan hezar hemwelatiyên Kurdistanî û bi taybetî Kurdên Êzidî, Kakeyî, Kiristiyanî, Şîe, Sunî û heya Turkemen jî bi awayên herî hovane kirine armanc.

DAÎŞ ku wek dijminê demokrasî û azadî û bi giştî gelan tê hejmartin, piştî êrîşa xwe ya bo ser Herêma Kurdistanê û dagîrkirina beşek ji xaka wê, me dît ku bi sedan mêr û jin û zarokên Êzidî ser birîn, û bi sedan hezar kes ji wan komkuj, û ji xaka bav û bapîrên wan aware kir, û bi dehan biryarên ne mirovane derkirin ku têde, peyrewên olên curbicur bi giştî û bi taybetî xûşk û birayên Êzidî ketin ber tundûtîjiyên herî hovane. Biryarên weke firotina jinên Êzidî û sinetkirina keçan û qedexekirina dîtina televîzyonê û çûna bo derveyî mal bi tenê ya jinan, û bi dehan biryarên din ku cihê heyrîmana her mirovekî îroyî ne.

DAÎŞ piştî dagîrkirina beşek ji xaka Herêma Kurdistanê, cuda ji vê ku li dijî her cure azadî û pêkvejiyanekê ye, selimand ku li dijî dîroka gelane jî, jiber ku bi panahiya xaka dagîrkirî ya Kurdistanê, her wek deshilata Talban li Efxanistanê dest bi teqandin û jinavbirina mizgewt û cihên pîroz ê birayên Êzidî û kakeyî û Kiristiyanî û Şîe û Sunî kir, ku ji bilî pîroziya cihên wan ên olî, xwediyê dîrokeke dûr û dirêj ya niştimana Kurdan in.

Lê ya ku giring û cihê jêhûrbûnê ye, ew e ku DAŞÎ ji bilî vê ku têkderê aramiyê û tenahiyê ye di deverê û di Herêma Kurdistanê de bi taybetî, metirsiyeke mezin e jî ku tê pêşbînîkirin ku hekî serkevtinê bi dest bixe, eva wê aramî û tenahiyê di hemû cîhanê de bixe ber gef û metirsiyan.

Di hember de ya cihê dilxweşiyê bûye, eva ye ku ji aliyekî ve bi dirêjahiya xaka sînorên Herêma Kurdistanê di hemberî DAÎŞ’ê de, pêşmergeyên Kurdistanê rêgir bûne ji pêşrewiya zêdetir ya vê hêzê, û ji aliyekî din ve, hem giringiya xaka Kurdistanê û siyaseta cîhan pesenda Kurd di vê para xaka kurdistanê de, û hem jî hest bi berpirsayetîkirina civaka cîhanî li hemberî gefên DAÎŞ û li serveyî hemiyan welatên Amerîka, Feranse, Îtaliya û çend welatên din, bûne sedema vê ku di eniyên şer di gel binajioxwaziya Îslama siyasî, û bi piştevaniya esmanî û çekên pêşkevtî û alîkariyên hemû aliyane yên Rojava, hêza pêşmerge berbirûyê hêza tarîperest ya DAÎŞ’ê bibe, û roj bi roj paşekêşeyeke zêdetir pê bike, û em hêvîdar in ku eva dawî henaseya vê hêza dijî Kurd be, û ji bo hertim navê wê di rûpelên reş ên dîrokê de bimîne.

# Gotinên Navdaran



**A: Firat Ceweri**

Berî ku em bi rastî bimirin, em hezar carî dimirin.

**WE.Henley**

Mirin carinan cezayek, carinan diyariyek, carinan jî
qenciyek e.

**Seneca**

Ne bi qehrê, bi ken mirovan bikuje.

**Nietzsche**

Hemû jin bi hunera veşartina qehra xwe dizanin,
hela ku baş qeherî bin.

**Rousseau**

Ger tu biqeherî heta bi çaran bihejmêre, ku tu pir
biqeherî jî çêran bike.

**Mark Twain**

Mirovekî tengizî çavên xwe digire û devê xwe
vedike.

**Cato**

Ji tengezariya mirovê bi sebir bitirse.

**Dryden**

# Bîranîna ekterê navdar ê Kurd Yilmaz Gûney

A: Îdrîs Sitwet

Pirr kesên egîd di dîroka kurdan de hene ku zehmet ji bo gelê xwe kişandine, û her kes bi awayekî xizmet bo gelê xwe kiriye, û yek ji wan kesan Yilmaz Gûney e ku navê wî weke stêrkek geş di sînemaya Kurdî de xuya ye, û xizmet bi huner û sînemaya Kurdî kiriye.

Cihê xwe ye ku em bîranînekê ji 30'emîn salvegera koçkirina derhêner û fîlmçêkirê Kurd Yilmaz Gûney bikin.

Yilmaz Gûney xelkê Kurdistana bakûr, di sala 1937'an de, di gundê Yînîce ya ser bi herêma Edenê ji dayîk bûye.

Seba hejarî û nedariyê dayîk û babê wî, gundê xwe bi cî hêlane, û ber bi bajarê Edenê ve koçber bûne.

Yilmaz Gûney her di vî bajarê de çû xwendingehê, hetanî xwandin û nivîsînê fêr bibe. Serbarê êş û elemên jiyana dijwar ya wî serdemî, di xwendinê de serkevtinên baş bi destve anîn, û pirr hez ji nivîsandinê dikir.

Wî li zanîngeha Efrînê Hiqûq û li zanîngeha Stenbolê jî aborî xwend, û serbarê zulm û zordariyên dewleta Turk, ku li kurdan dikirin û Yilmaz jî seh bi vê êş û elelma neteweya xwe dikir, eva bû sedem ku Yilmaz xebatê di rêya huner û sînemayê de bidomîne, û ber bi nivîsîna çîrokan û sînaryoyên sînemayê ve biçe.

Yilmaz seba nivîsandina çîrokan çendîn carî, ji aliyê dewleta Turk ve tê destbiserkirin, lê wî di girtîgehê de jî, dest ji senaryo nivîsînê berneda. Dawî car Yilmaz bi boxtanên cur bi cur bi 18 sal hepsê tê cezakirin. Yilmaz di sala 1980'î de daxwaza îznê dike ku biçe seredana malbata xwe, lê bi nepenî li Turkiyê derdikeve û diçe Feransê.

Ev fîlmên ku Yilmaz Gûney weke derhêner û sinaryonivîs, û lîstikvan têde kar kiriye, zaf in û nahê kirin ku em hemiyan bînin ser kaxezê, lê di sala 1952'an de yekem romana wî hat weşandin.

Fatoş Gûney hevjîna Yilmaz dibêje, min 16 salên xwe bi Gûney re dersbas kiriye, û bi qasî nefesa wî, ez nêzîkî Gûney bûme. Di di jiyana wî de, ji bilî min, wî tu jin jî tunebûne. Ew dibêje, dema Gûney di hepsê de bûye, herçiqas dîwaran ew ji hev veqetandibin jî, lê destên wan di nav destê hev de bûye. Yilmaz Guney mixabin di roja 9'ê Îlona sala 1984'an de, li Parîsê di emrê 47 saliyê çû ser dilovaniya Xwe.

**Riha wî şad be**









# *Zimanê Kurdî*



**Serhed:** Tu diçî kîjan xwendingehê?
**Mûsa:** Ez diçim Xwendingeha Selahedînê Eyûbî. Tu?
**Serhed:** Ez jî diçim Xwendingeha Ehmedê Xanî.
**Mûsa:** Tu di kîjan polê de yî?
**Serhed:** Ez di pola 5-Byê de me. Tu di kîjan polê de yî?
**Mûsa:** Ez jî di pola 5-Ayê de me.
Tu herî zêde ji kîjan dersê hez dikî?
**Serhed:** Ez herî zêde ji dersa kurdî hez dikim.
**Mûsa:** Ez jî ji dersa dîrokê hez dikim.
**Serhed:** Ez ji bo te serkeftinê dixwazim.
**Mûsa:** Serkeftin ji bo te jî.

# *Tiştonek*



**A: Mahir Berwarî**

1-Serê mar e ne mar e, diçêrre ne kar e, çar pê ye ne dewar e.

2-Darekê çar çiqil, her çiqlekî pênc serkêt pêve.
Ezman sorê didan spîk.
- Seyê netajandî, berxa nemêjandî, mêrga neçerandî.
(* Se, dayka Hewa, Behişt)
- Elîf gotiye, cîmê qaf bibe lu mîmê.
(* Xoda, Cobraîl, Quran, Mohemed)
- Dê çim sere Kerkukê, dê vekim bi kurkekê, sed çûçik li
dûv mamirkekê. (* hustayê xanî avakirnê).

3-Meri bulut, deri kilît.
- Kerê beqala, digerhit li ber derê hemî mala.

4- Tu bimirî jî, her ji te venabit.

5-Lêv, ezman, difin/poz
- Tebeka li ser t`ebekê, ji nav da marê gezekê, di ser da
konên rûvî ya, di ser da çirayên zerî ya.
Tbeka li ser t`ebekê, di nav da marê gezekê, di ser da
Konên rûvî ya, di ser da çirayên nebiya, di serda dehlên
hûta.

Têdîtin: Amadekar destkariya devoka metelokan nekiriye

**Xwendevanên hêja!**

**Hûn dikarin bersiva tiştonekan bi riya E-Maila Agiri2003@gmal.com ji me re bişînin**

